Bidestveanîna mafên neteweyî yên gelê Kurd di çarçoveya Îranek Demokratîk û Federalî de

Hejmar: 86
30'ê Nîsanê
Buha: 150 Tûmen

agiri

Rojnameya panzdehrojî ya siyasî, çandî û giştî

Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne

## Yekîtiya Ewropayê Banka Milî A Îranê Baykut Dike

Hindî ku dem dibore zextên navneteweyî li ser rejîma Îslamî a Îranê zêdetir dibin. Ajansên Nûçeyan eşkere kirin ku di civîna vê dawiyê a Komîteya Siyasî û Ewlekarî ya YE de li Bruksêlê, piştî dijberiya xurt a Îtalyayê û bêencammana van hewlan, biryar hate girtin ku Banka Milî a Îranê bikeve ber baykutên YE'ê.



Nesrîn Qasimlo:

## "Hewce Ye Dayîk Û Babên Kurd, Zarokên Xwe Welatperwer Û Li Dijî Dîktatoriyê Perwerde Bikin"



Roja 17'ê Nîsana 2008'an, civîneke taybet ji aliyê Yekîtiya Jinên Demokrat ên Kurdistana Îranê ji bo **Nesrîn Qasimlo**, hevsera emekdar ya şehîdê rêber û nemir **Dr. Qasimlo** li bajarê Oslo yê Norwejê hate lidarxistin. Di civînê de Nesrîn Qasimlo li ser jiyan û serpêhatiya xwe bi Dr. Qasimlo re, xebata jinên Kurd, tekoşîna gelê Kurd û bedelên ku Kurdan di vê rêyê de dane û her wiha erk û wezîfeyên malbatên Kurdan di vê derheqê de axivî.

Wê di beşek ji axavtina xwe de got: "Ji bo ku ew heyamê dûr û dirêj yê jiyana min ku bi Kurdan re û ji bo Kurd derbaz bûye, heder nedim, min pirtûkek bi zimanê Fransî nivîsandiye û hêvî dikim bi Kurdî were wergerandin".

Nesrîn Xanimê li ser xebata jinan got: Xebata tu gelekê bêy beşdariya jinan ser nakeve. Min jî weke jinekê, salên dûr û dirêj tevî Ebdulrehman ji bo serxistina wê xebatê cehd û hewl daye û heta dawiya jiyana xwe jî dê bi wê xebatê wefadar bimînim."

Di beşa dawî a axavtina xwe de Nesrîn Qasimlo got: " Hûn weke dayîk û babên Kurd ku di pêxema bidestxistina armancên gelê Kurd de derbeder bûne, hewce ye hûn zarokên xwe bi welatperwerî perwerde bikin, ji ber ku dîktatorî heta serê namîne û hûn jî divêt rojekê vegerin Kurdistanê."

## Bi Beşdariya Şanda PDK Îranê, Civîna Koma Giştî A Neteweyên Yekbûyî Li Ser Pirsgirêka Xelkên Xwecih Dest Bi Xebatên Xwe Kir



Roja duşem, 28'ê Nîsana 2008'an, civîna salane ya Koma Giştî a Rêxistina Neteweyên Yekbûyî li ser pirsgirêka xelkên xwecih di binkeya UN'ê de li bajarê "New York"ê xebatên xwe dest pê kir.

Civata giştî ya han ku sala 1994'an di nava Neteweyên Yekbûyî de pêk hatiye, di vê civînê de nûnerên piraniya xelkên xwecih ji hemû parzemînên cîhanê û nûnerên welatên cur bi cur ku xelkê xwecih hene û welatên endam ên NY û komîsyonên cuda cuda ên vê rêxistina navneteweyî û saziyên ne dewletî ku têkiliya wan bi pirsgirêka neteweyan û xelkê xumalî û xwecih ve heye, beşdar bûn.

Di civîna roja duşem(28.04.2008) ku ji bo jîngeh û mafên xelkê xwecih hatibû terxankirin, piştî vekirina civînê ji aliyê Desteya Rêveber û axavtina şareza û pisporên vî warî, endamên mêvan pirs û pêşniyarên xwe raberî civînê kirin.

Şandeke PDK Îranê bi nûneriya Rêxistina Netewe û Gelên Bênûner(UNPO) pêkhatî ji **Şerîf Bêhrûz**, nûnerê PDK Îranê li Amerîka û **Elî Qadirî**, berpirsiyarê Komîteya vê partiyê li vî welatî bi awayekî çeleng beşdarî civîna han bûn. Şanda partiyê di navbera kar û xebatên vê civînê de karî bi gellek kesayetî, nûner û beşdarên vê civînê re hevdîtinan pêk bîne.

Civîna han heta 2'ê Gulana 2008'an dom dike û şanda partiyê jî li ser pirsa neteweya Kurd li Îranê di bin desthilata Komara Îslamî de dê gotarekê pêşkêş bike.

agiri

Rojnameya panzdehrojî ya siyasî, çandî û giştî
Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê diweşîne

http://www.kurdistanmedia.com/kurmanci/index.php
Navenda bingehîn ya xebata Agirî li Kurdistanê ye.
Navnîşana derveyî welat: AFK B.P. 102- 75623 Paris CEDEX 13 –FRANCE

E - Mail:
agiri2003@hotmail.com
agiri2003@googlemail.com



## Nerazîbûna Îlamiyan Ji Bo Encama Hilbijartinê, Bû Sedema Kuştin Û Birîndarbûna Dehan Kesan



Piştî ku êvariya roja înê 25'ê Nîsana 2008'an, encama gerra heştan a binav Hilbijartina Meclisa Şêwra Îslamî hate îlankirin, xelkê Îwanxerbê bona xuyakirina nerazîbûnê li sextekarî di vê şanosaziyê de rijiyan ser rêyên wî bajarî û di navbera xelkê nerazî û hêzên Komara Îslamî de şer û pevçûn derket holê.

Di demekê de ku hejmara eseh a kuştî û birîndarên Îwanxerbê bi tevahî ne xuya ye, lê Daryûş Qenberî nûnerê Îlamê di Parlemana heftan a Komara Îslamî de ragihand, hejmara kuştiyên pevçûna bajarê Îwanxerb a Kurdistanê 3 kes in û 28 kes jî birîndar bûne. Wî eşkere kir û got ku kesên kuştî temen 12, 16 û 17 salî ne û eva vê yekê dide holê ku hêzên Komara Îslamî bi awayê kor û hovane êrîşî ser xelkê kirine. Qenberî di hevpeyvîneke de bi Malpera Farsî ziman a "Asre Iran"ê re da xuyakirin ku bêguman hejmara birîndarên vê pevçûnê gellek ji vê serhejmariyê zêdetir e û gellek kes ji ber tirsa girtinê neçar in, li batî nexweşxaneyê, di malan de birînên xwe derman dikin. Tê gotin ku niha rewşa bajar awarte hatiye ragihandin û hêzên dijî şoreş di nava bajar de cihgir bûne û digerin.

Daryûş Qenberî berbijarê gerra heftan a binav hilbijartina Meclisa Şêwra Îslamî a Îranê ji aliyê Navenda Hilbijartinan a Wezareta Hundir a rejîma Komara Îslamî ve wekî kesê sêyem hatibû îlankirin, lê piştî nerazîbûna alîgirên wî li Îwanxerbê û kuştin û birîndarbûna çendîn kesan, ji aliyê navenda han a rejîmê ve, Qenberî wekî kesê yekem yê bajarê Îwanxerbê hate ragihandin.

**Tevahiya dikan û bazarên Îlamê hatin daxistin**

Bona xuyakirina nerazîbûnê li hember vê cinayeta hêzên Komara Îslamî, tevahiya xelkê parêzgeha Îlamî roja sêşem, 29'ê Nîsanê dikan û bazar daxistin û xelkê vê parêzgehê daxwaza piştgiriya giştî a tev kurdan ji hevwelatiyên kurd ên Îlamî kirin.

## Heftînameya "Rojhelat" Bo Yekcarî Hate Daxistin

Dadgeha Tawanê a Parêzgeha Kurdistanê, biryara daxistina yekcarî a heftînameya "Rojhelat"ê da. Di vê biryarê de her wiha ji sê rojnamevanên vê heftînameyê re cezayê pere hatiye birrîn.

Rêxistina Nûçegihanên Bêsînor di vê derbarê de ragihand: "Di Îranê de ji bo bêdengkirina ragihandinên serbixwe, ji hemû hêcet û mihaneyekê mifah tê wergirtin. Dezgeha Dadwerî a Îranê bi girtina her biryareke ne dadwerane, ji berê zêdetir hitbar û pirestîja xwe ji dest dide". Ji destpêka sala 2008'an vir de, 27 belavok û weşan hatine daxistin.

Hate ragihandin ku roja 18'ê Nîsana 2008'an, Taya yek a Dadgeha Tawan a Parêzgeha Kurdistanê careke din biryara daxistina yekcarî/herdemî a heftînameya "Rojhelat"ê der kiriye.

3 rojnamevanên Kurd ên vê heftînameyê, **Ferhad Emîrpûr**, **Riza Elîpûr** û **Saman Silêmanî** ji 20'ê Çiriya Pêşîn a sala 2006'an, ku piştî mehekê bi zemanet û rehîna 50 milyon tûmenî serbest hatin berdan, piştî du salan, dûdeçûna dadweriyê, cezayê pere ji wan re hate diyarîkirin.

## Desttêwerdanên Îran Û Sûriyê Di Nav Kar Û Barên Îraqê De Bi Berfirehî Hate Rexnekirin



Di çend rojên borî de, kesayetiyên siyasî û berpirsiyarên bilind ên Îraqî û Amerîkî bi xurtî û berfirehî ji ber maytêkirinên berdewam ên rejîmên Îran û Sûriyê di nav kar û barê Îraqê de, ew du welat rexne kirin.

Ravêjkarê Ewlekariya Neteweyî a Îraqê **Muwefeq Rubeyî** got: Îran û Sûriye çavkariyên sereke ji bo kiryarên terorîstî ne ku Îraqê dikin armanca xwe û li Sûriyê û Îranê ji me re mirin tê şandin. Wî got ku ev du welate alîkariya terorîstan di Îraqê de dikin.

Wezîrê Parastinê yê Îraqê, **Ebdulqadir Obeydî** jî di vê derbarê de hate ziman û got: Li gor belgeyên ku di destê me de ne, welatên cîran ên Îraq bona piştgirî ji girûpên terorîstî alîkariya dirav û çek û cebilxaneyê didin wan. Wî di konferansa çapemeniyê de bi eşkere navê Îranê anî ziman ku wî karî dike.

**Zalmay Xelîlzad Nûnerê Amerîka li NY** û serokê hêzên çekdar ên Amerîka li Îraqê ji ber alîkarî û piştevaniya rejîmên Îran û Sûriyê ji terorîstên hundirê Îraqê re, ew du dewlet bi xurtî rexne kirin û ev karê wan bi maytêkirin di nav kar û barên Îraqê de hesibandin.

Êdî tu şik û gumanek li dor alozî û fitneafirandina van du welatên dîktator di Îraqê de nemaye û bi eşkere tê baskirin.

## Ava Bendava Mehabadê %40 Kêm Bûye



Berpirsiyarên Rêveberiya Avê li Mehabadê dan zanîn ku îsal ava bendava Mehabadê 40 ji sedê kêm bûye û li gor 7 salên borî, eva rêjeya herî kêm a ava vê avbendê bûye. Kêmiya barînan ev pirsgirêke afirandiye. Bajarê Mehabadê xwediyê 60 hezar hektar erdê cotkariyê ye ku 12 hezar ji vê qasê di deşta Mehabadê de ye û avdaniya wê ji rêya vê avbendê tê kirin.

## Sêv Mêweya Herî Feydedar



Lêkolînên zanayên warê tendurustî û xwarinê nîşan didin ku Sêv ji ber bandora wê ya mezin bona berlêgirtin ji hinek nexweşiyan, yek ji mêweyên herî bifeyde ye.

Zanayên Ustraliyayî piştî lêkolîn û dahûrandineke berfireh ragihandin ku Sêv xwediyê hinek taybetmendiyên xwarinê ye ku egera tûşbûn bi Penceşêrê kêm dike û laşê mirov li hember hin nexweşiyên dil û hinavan diparêze. Sêv yek ji fêkiyên herî bi feyde tê hesibandin.

**Dr. Cuwan Heqî:**

# "KURD Lİ SERKETİNA AMERÎKAYÊ Dİ ROJHİLATA NAVÎN DE FAKTORÊ YEKEM İN"

**Di sala 2008'an de Li Amerîkayê hilbijartina girîng a Serok Komariya tê lidarxistin. Nasîna sîstema Amerîka û qanûnên wê yên hundir û rojeva germ a hilbijartina 2008'an û bandora hilbijartina vê gerrê li ser Rojhilata Navîn û têkiliyên Kurdan û Amerîka bû armanc ku em rojeva hilbijartina Amerîkayê a 2008'an bişopînin. Ji bo vê yekê me xwe gihand Dr. Cuwan Heqî yek ji endamên Rêveber ên Komeleya Dostaniya Amerîka û Kurdistan, "America-Kurdistan Friendship League" (AKFL) ku haya wî ji sîstema Amerîkayê bi giştî û nemaze hilbijartinê pirr heye, wî bi dilgermî pirsên me bersivandin û em dê bi hev re vê hevpeyvînê bişopnin:**

**Hevpeyvîn: Azad Kurdî**

**Dr. Heqî:** Destpêkê dixwazim hindek kurteagahdarî ser welatê *Amerîkayê* bas bikim.

Weku diyar e, Amerîka bi 300 milyon nifûs û 9,4 milyon km çarçik xaka xwe ve taliya vê salê dê serokek xwe yê/ya nû hilbijêre.

Li Amerîkayê sê dezgahên sereke yên qawetê bo rêvebiriyê hene:

1.Dezgaha çêkirina qanûnan. Ew ji aliyê Meclis û Senatoyê ve ne.

2.Dezgaha pêkanîna (bicihkirina) qanûnan. Ew jî hikûmeta Amerîkayê ye.3.Dezgaha çavdêriyê. Ew jî **Dadgeha Bilind** e.

Gava qanûnek ji aliyê Meclis û Senatoyê ve hate çêkirin, ew diçe ba serokê dewletê. Mafê serok heye ku vê qanûnê veto (red) bike. Gava qanûn vegeriya Meclisê, divê ew (Meclis/Senato) 2/3 (67%) ji dengan berhev bikin, heya ku ew qanûn were qebûlkirin. Hingê serokê dewletê nikare rê li ber vê qanûnê bigire.

Ger şikayeta bo xeletiyekê di van qanûnan de hebin, hingê ew dikare here Dadgeha Bilind ku wê 8 endam û yek jî serokê xwe heye. Biryara Dadgehê çi be, dê ew were pêkanîn.

Ger pirsgirêkên di eyaletekê de, di navbeyna kesan de çêbin, hingê çareserkirina wan pirsgirêkan dikeve ber desthilatdariya wê eyaletê. Lê ger pirsgirêk pêşberî dewletê, yan jî navbeyna du eyaletan de were meydanê, hingê çareserkirina wan dibe ya dewleta federal, ango ya navendî.

Her 50 eyaletên (nîvdewletên) wê dê namzetên du partiyên sereke, (RP û DP) hilbijêrin. Li aliyê dî jî, her eyaletekî ji wan birheke xwe yên cuda li ser hilbijartinan hene.

Nifûsa eyaletan ji hev cudan ye- nifûsan hindek eyaletan zêde ne û yên hindekan jî gelek hindik in. Endamên Meclisê li gor nifûsa wan eyaletan tên hilbijartin. Da ku newekhevî (bêedaletî) nekeve nava desthilatdariyê de, dezgahê Senatoyê hatiye sazkirin. Ji ber vê çendê, her eyaletek du Senatorên xwe hene- bila nifûsa wan çiqas gelek, yan jî hindik be jî. Ev yeke eyaletên nifûsbiçûk li pêşberî yên têrnifûs diparêze. Çi qanûnên ji aliyê Meclisê ve werin pêkanîn, ew dikarin li




**Dr. Cuwan Heqî kî ye?**

Li gundê Şêxê Reş a **Şirnexê**, Bakurê Kurdistanê hatiye dinê. Xwendina xwe ya tendurustiyê (tibbê) li Bulxaristanê kuta kiriye. Sala 1987'an hatiye Swêdê. Li Swêdê, pisporiya doktoriyê, li beşa psîkiyatriyê xilas kiriye. berhemeke lêkolînekî bi zimanê Swêdî derbarê nexweşiyên mejî, bi taybetî **nexweşiyên jibîrkirinê (demens**) heye. Di navbera salên 1996-1998'an de kovara "**Rojbaş**" derxistiye. Du pirtûkên wî ên Kurdî bi navên "**Şûjin**"( 2000) û "**Xeta Sor**"( 2007) çap kirine.

Di meha Adarê 2007'an, digel 5 hevalên xwe yên kurd li Waşîngtonê, Navenda Demokrasiyê li Rojhilata Navîn, "**Center for Democracy in the Middle East, CDME**" saz kirin. Ev dezgehek weke deztgahekî şêwirdmendiyê ji bo pirsgirêkên nasandin, belavkirin û bicihkirina demokrasiyê li Rojhilata Navîn e û li Amerîka kar dike. Herweha meha Hezîrana 2007'an de ji aliyê sê hevalên Kurd û 10 Amerîkiyan ve li Waşîngtonê "**Kumeleya dostaniya Amerîka û Kurdistan, "America-Kurdistan Friendship League, AKFL** hate sazkirin.

Senatoyê werin sekinandin.

Herweha mesele li hindek eyaletan hukmê îdamê heye û li hindekan nîne. Ango taybetmendiyên her wilayetê dikare birha xwe li hilbijartinan bike.

Serokê Senatoyê cihgirê serokê dewletê ye, ku niha **Dick Cheney** ye. Li gor qanûna Amerîkayê, cihgirê serokê Amerîkayê yekser (otomatîkî) dibe serokê Senatoyê jî.

Serokê Meclisê **Nancy Pelosi** (DP) e.

Sîstema siyasî ji aliyê Senato- û Meclisê ve tê rêvebirin. Amerîka bi rêya federalîzmê rêve diçe.

Her eyaletekê du Senatorên xwe hene. Ango li tevahiya Amerîkayê 100 Senator hene.

Meclis jî 435 Parlamenterên xwe hene. Kesê ku namzeta xwe bo wekîltiyê dane, divê temenê wî/wê ne kêmî 25 salan be û ji kêmahî ve 20 sal bin ku ew hemwelatiyê Amerîkayê be. Wekîl ji bo du salan tên hilbijartin. 232 wekîlên Partiya Demokrat (DP) û 198 jî yên Partiya Komarîxwaz(RP) hene. Di Senatoyê de, 52 Senatorên Demokratan (li gor hilbijartinên 2006'an) û 46 jî yên Komarîxwazan hene. Du Senator jî serbixwe ne.

Wek ku diyar e li Amerîka du partiyên sereke ji bo desthilatdariya Amerîkayê hevrikiyê dikin: Partiya Komarî û Partiya Demokrat.

Di destpêkê de çend kes wek berendamên partiyê xwe didin pêş. Hilbijartina berbijarên her partiyekê, çi ya RP çi ya DP ji hev cuda ne. Lê kêm-zêde wek hev in. Bi kurtî her berendam divê hindek dengên delegeyên partiyê yên her wilayetê wergirin heya ku ew bikarin berdewam bikin. Di pêvajoya vê hilbijartina bernamzetiyê de hindek berbijar ji ber ku kêm dengên delegeyan werdigirin, xwe ji berendamiya partiyê ji bo serokatiya Amerîkayê dikişînin. Di dawiyê de her partiyê berendamek xwe bo serokatiya Amerîkayê destnîşan dike.

Heya niha namzetê Partiya Komarîxwaz kifş bûye. Ew jî **Senator McCain** e. Lê yê Partiya Demokratan ne diyar e. Namzetiya DP'ê di navbera Senator **"Hillary Clinton"** û **Barack Obama** de maye. Divê ew "xwe ji hev safî bikin" ango yek ji wan bibe namzetê partiyê.

**Aliyên erênî û neyênî ên McCain, Hillary û Obama çi ne? Heta niha van sê berendamane çi li ser Kurd û doza Kurdan gotine an na?**

**Dr. Heqî:** Di pêşiyê de hindek agahhdarî ser wan namzetan:

Partiya Republican, RP**:**

**Senator John McCain:** Siyaseta McCain wek ya serok "Bush" e, lê hinekê

”nermtir” e. Senator McCain li ser pirsgirêka Îraqê jî, “nafikire ku ew eskerên Amerîka ji Îraqê vekişîne.” Bi tersê wê, ew dixwaze hêza Amerîkayê bêhtir û xurtir bike û ew li wir bimînin. Li aliyê dî jî, ew dixwaze eskeriya Amerîka bi tevahiya xwe ve hê bêhtir xurttir bike. Herweha McCain digel dîtina parçebûna Îraqê ji bo sê beşan e. Û gava Senator McCain wek serokê Amerîkayê hate hilbijartin ew dê li ser Sûriyê û Îranê hê bêhtir bişidîne.

**Başiyên (erêniyên)Senator McCain:**

Naxwaze ku Amerîka di Îraqê de binketî be û eskerê xwe vekişîne. Dibêje ku eskerê



McCain, berendamê Partiya Komarîxwaz

Amerîkayê dê li Îraqê bo çaxek dirêj bimîne- qala gellek salan dike.

Ger ji bo Îraqê pirsgirêka ewlekariyê baş rêve biçe (wek ku ji meha Nîsana 2007’an ve wisa diçe) ev yek dibe piştgiriyek xurt ji bo wî.

Zeîftiya siyaseta bernamzetên Partiya Demokratan.

Bi rengekî piştgiriya wî bo kurdan. Çendî ku ev piştgirî ne zelal be jî- ez piştgiriya wan berbijaran bo kurdan wek aliyekî xurtbûnê ji bo wan dibînim.

Piştî diyarbûna wî bo berendamiya RP, kesên dewlemend û siyasetmedarên Amerîkayê dê xwe hê bêhtir nêzîkî wî bikin. Ji vê jî ew dê bikare alîkariyek xurt ya aborî bo kampanya xwe berhev bike, herweha piştgiriyek xurt ya siyasî bo xwe peyda dike.

**Lawaziyên (neyêniyên) ”Senator John McCain”**:

Temenê wî zêde ye, ango ew extiyar e, 71 salî ye.

Wî tu caran –ji bilî karê dewletê- di kareke din de nexebitiye. Ji ber vê yekê, li gor siyasetzanên Amerîkî, ew ji pirsgirêka aboriyê ve qasê fêhm nake. Zû hêrs (aciz) dibe.

Gava ew wek pîlotê balafirê bû, wî çend caran balafir êxistiye.

Rengê siyaseta wî ne diyar e. Dikare ji nişkê ve xwe biguhere.

Ne kesek kunservatîv e ku wek dilê Partiya Komarîxwzan dixwaze.

Lawaziya rêbertiya wî.

**Ji bo kurdan** siyaseteka Senator McCain di derbarê piştgiriya kurdan zelal nîne. Û wî heya niha diyar nekiriye gelo dê dayin-standinên Amerîkayê di bin serokatiya wî de digel kurdan, taybetî Kurdistana azad çawa bin. Herweha, xetera birha lobiya (nasandina) tirkan ser wî heye. Lê mixabin heya niha kurdan xebatek bo lobiya xwe digel wî nekirine.

**“Başiyên, erêniyên” Senator “Hillary Clinton”:**

Tecrûbeya wê ya siyasî heye.

Dayîn-standineke wê ya siyasî û berfereh (ji ber serokatiya mêrê xwe) heye.

Kesên feqîr, kêmpere pişta wê digirin.

Siyaseteke wê ji bo kurdan, hema bêje gellek zelal, heye. Ew dixwaze bingeha eskerên Amerîkayê ji Îraqê bibe li Başûrê Kurdistanê bi cih bike.

Ji vê jî ew dikare piştgiriya kurdan bidest bixe.

Qismek mezin ji Cihûyan (qismên “Statuqo”yî) li pişt siyaseta wê disekinin.

Kêmasiyên berbijarê Komarîxwazan.

**“Lawaziyên, neyêniyên” Senator “Hillary Clinton”:**

Diyar e ku birha lobiya (danasîna) tirkan ser wê heye. Wek nimûne, milyarderekî tirk, Mehmet Celebî (ultranationalist-nijadperest), ku di heman demê de ew dijminê kurdan e, wî 100 hezar dolar bo alîkariya kampanya wê da Hilarî Kilînton. Wê jî, ji bo vê alîkariyê cihek, “kursiyek” girîng di konferansa pêşerojê ya “convention”ê de ji bo Celebî destnîşan kir. Ji vê jî dikare xetera tesîra (birha) vî kesî (û yên din?) tirk yê/yên nijadperest li siyaseta ““Hillary Clinton”” bike/in.

Lê di dawiyê de ji ber dijminatiyek diyar ya Celebî bo kurdan, Hillary mecbûr ma ku ew kursî û kar ji vî dijminê kurd bistîne. Ev yeke birînek siyasî li kampanya wê ya hilbijartinê kir.

Siyaseta wê ji aliyê mêrê wê ve tê rêvebirin- ango siyasetek wê serbixwe nîne.

Hevrikê wê, Obama gellek xurt e.

Ew nikare dengan ji Komarîxwazan bistîne, lê Obama dikare û kariye jî.

**Başiyên erêniyên Senator ”Barack Obama”**:

Ew xort e. Gazî nûjeniyê dike.

Li ser rêkûpêkkirina aboriya welat disekine.

Siyaseteka wek ya serokê Amerîkayê yê kevin, ”John Kennedy”, wisa nerm, dimeşîne.

Ji ber vê yekê malbata Kenedî bi awayekî vekirî piştgiriya wî dikin.

Gellek xort û bi taybetî jin dengên ji ber hîsên xwe didin wî.

Gazî qata navçe dike.

Gellek baş dizane biaxive û xwe bide pêbawerkirin.

Dikare dengan ji Komarîxwazan jî bistîne.

**Lawaziyên, neyêniyên Senator ”Barack Obama”**:

Dixwaze eskerên Amerîkayê ji Îraqê vekişîne. Komarîxwazan dê vê yekê weke “xetera jarbûna Amerîkayê bidin xuyakirin.” Û ew dê propagandeyê bikin ku ev yeke “zirav bi hêzên terorîst re çêdike”. Ev jî rê dide hêzên terorîst çi li hundirê welat û çi ên dervayî welat zirarê bidin Amerîkayê.

Amerîka navê xwe yê “Superpower” winda dike.

Li gor wan, Amerîka di bin serokatiya Obama de dê bibe welatekî “tirsonek”.

Komarîxwaz dê li ser vê yekê siyasetê bikin û gellek dengan bistînin.

Senator Obama xort e. Tecrûbeya wî nîne.

Siyasetek wî ya diyar ji bo kurdan nîne.

**Rikeberiyeke xurt û balkêş di navbera berbijarên her du partiyên sereke ên Amerîka (DP) (RP) heye. Weke te got berendamê RP’ê McCain e, lê hêj rikeberê wî yê DP’ê ne xuya ye. Bi baweriya we Hillary dibe berendamê eslî yan Obama?**

**Dr. Heqî:** Li gor dîtina min ev rewşa nezelalî rêve dike ku ew her du berendam biçin **“convention”** ê. Ango şêwirmendiya partiya xwe (DP). Ew jî di meha Tebaxê ji aliyê “Superdelege”yan ve safî dibe.

Lê bi giştî, superdelegeyan rengê dengên xwe di konferansa dawiyê (convention) de eşkere dikin. Ango ew dê piştgiriya kîjan berbijarî bikin. Bes ew dikarin hê ji niha ve piştgiriya xwe bo yek ji wan bernamzetan eşkere bikin.

Ger em ser Senator Obama biaxivin, divê em bersiva hindek pirsan jî bidin:

Gelo Amerîka amade ye bo serokek eslê xwe misilman û ne sipî? Herweha miletê Amerîkayê dê bixwaze desthilatdariya welatek “Superpower” bêxe destê Senator Obama de? Ma Amerîka dixwaze serokek xwe hilbijêre ku ew dê bi Îranê û welatên ku fendamentalîzma olperestiyê diafirînin “li hev bike”? Gelo Amerîka amade ye ku eskerê xwe ji Îraqê vekişîne? Ger Amerîka ji Îraqê vekişiya, dê Senator Obama çi alternatîfê bêxe şûnê da ku ew stabîlîtetê li herêmê biparêze? Niqteyek girîng, gava Cihûyên Amerîkî piştgiriya Senator Obama negirin, ew dikare bibe serokê Amerîkayê?

Û xalek ji bo me kurdan girîng, gelo Senator Obama bo piştgiriya kurdan çi plan û proje hene?

**Sîstema Federal a Amerîka çi bandorek li hilbijartina Serok Kumariyê heye?**

**Dr. Heqî:** Bêguman bandora wê heye. Ew jî nifûsa eyaletan tê. Weku diyar e her eyalet, weku “nîvdewlet” kar dike. Ango ew di kar û barên xwe de gellek serbixwe ne. Nifûsa hindek eyaletan zêde ne û yên hindekan jî gellek hindik in. Endamên

Meclisê li gor nifûsa wan eyaletan tên hilbijartin. Bandora endamên delegeyên her partiyê li gor nifûsa eyaletan tên destnîşankirin. Mesele eyaleta Kalîfornya eyaletek gellek mezin e. Bêguman gava bernamzetên partiyekê piştgiriya gellek endaman ji vê eyaletê bigire, ew dê yekser bandora xwe ser tevahiya dengên delegeyên partiya xwe bike. Herweha gava ew ji wan eyaletên mezin gelek dengan wergire, ew dikare namzetiya xwe bo partiyê jî misoger bike. Lê di warê hilbijartinên dawiyê de bo wekîl û Senatoran de ev niqte ne wisa ye. Ango, da ku newekhevî (bêedaletî)nekeve nava desthilatdariyê de, dezgahê Senatoyê hatiye sazkirin. Ji ber vê çendê, her eyaletek du Senatorên xwe hene- bila nifûsa wan çiqas gelek, yan jî hindik be jî. Ev yeke eyaletên nifûsbiçûk li pêşberî yên têrnifûs diparêze. Çi qanûnên ji aliyê Meclisê ve werin pêkanîn, ew dikarin li Senatoyê werin sekinandin.

**Hin kes nigeran in ku heke PD di hilbijartinan de serkeve, dê siyaset û stratejiyên Amerîka dê nermtir bibin? Hûn çawa difikirin?**

**Dr. Heqî:** Rast e, qenaetek wisa heye. Lê divê mirov li siyaseta berjewendiya hevbeş ya her du milet û welatan- ango Amerîka û Kurdistanê bîne ber çavan. Bila nehê jibîrkirin ku dostê herî nêzîk û pêbawer yê Amerîkayê di Rojhilata Navîn de bes kurd in. Desthilatdariya Amerîkayê bi vê dizane û pêwîst e bizane jî. Lê li gor dîtina min ger em mesele li ser Senator ““Hillary Clinton”” biaxivin, niqteya lawaz ku dê digel siyaseta Senator ““Hillary Clinton”” be ev e: Ew jî berdewamiya **“Status quo** (wek xwe bimîne**”)** ye. Em bi kurdî ji vê re dibêjin **“dîsa sim-simayîl e”.** Ango Senator “Hillary Clinton” dikare li Rojhilata Navîn destê xwe nede rewşê, wê wek xwe bihêle (weku mêrê xwe, Bill Clinton). Ango ne xirab bibe- ne jî gavên radîkal werin avêtin. Ev xeterek mezin e. Ji ber ku xetera herî mezin li Rojhilata Navîn diyar e çêkirina çekên Etomî ji aliyê Îranê ve ye. Ango ger “Hillary Clinton” çareyekê ji rêlêgirtina çêkirina çekên Etomî re nebîne, hingê Amerîka di Rojhilata Navîn de biser nakeve. Û gava Îran bû xwediyê çekên Etomî, Amerîka nikare li herêmê bimîne. Yan divê şerek Etomî digel Îranê bike, yan jî divê dev ji herêmê berde wê teslîmî fendamentalîzma Îranê bike. Herêm jî bi tevahiya xwe ve dikeve bin xeterek mezin ya Îranê de. Amerîka ji Superpower´tiya xwe dikeve. Lê ez ne bawer im ku “Hillary Clinton” dê Amerîka bêxe bin xeterek wisa mezin de. Lê, ji aliyê din ve, ya rastî ger Senator Obama were hilbijartin, hingê ev xetera ku me li jor behsê kiriye heye.

Di vir de divê em rola Îsraîlê li herêmê ji bîr nekin. Ango Îsraîl dikare her kêlîkê bikeve dewreyê de û wisa bike (bila kî serokê Amerîkayê be bila bibe) da ku desthilatdariya Amerîkayê pêşberî Îranê gavên radîkal bavêje.

**Hilbijartina nû a 2008’an dê çi bandor li ser Rojhilata Navîn hebe?**

**Dr. Heqî:** Bêguman li ser hilbijartina kîjan siyasetê ye. Gelo McCain dê were hilbijartin, hingê bandora siyaseta Amerîka li ser Rojhilata Navîn dê ji ya Senator Hillary ferqtir be.

Heta hilbijartina Senator Obama dê ji ya Hillary cudatir be.

Divê em dûr û dirêj bifikirin: Mesele ger Başûrê Kurdistanê daxwaza serbixwetiyê kir, dê Amerîka çi bêje?

Ger em kurd li ser daxwaza vegera Kerkûkê bo Herêma Kurdistanê ti gavan şûnde neavêjin, hingê ne dûre ku di navbera me û ereban de arîşe derkevin, dê ew serokatiya Amerîkayê çi bêje, çi bike?

Û ger Amerîka rejîma Îran û Sûriyê guhart, hilweşand, reform yan jî bi renegekî maqûl li hev kir, dê li vir dê çi rol bigihe, yan jî bide Kurdan?

Û ger kurdan ser Amerîka şidandin da ku ew li ser Tirkiye bişidîne da ku ew çareseriyekê bo pirsgirêka Bakûrê Kurdistanê peyda bike, dê ew serokatî/desthilatdariya Amerîkayê çawa hereket bikin?

Ango bersiva van pirsan pirr rengî ye û ew jî bi siyaseta serokê nû yê Amerîkayê ve gelo ew çawa li berjewendiya hevbeş ya kurdan û Amerîkayê dinêre ve kêm-zêde girêdaye.

**Pêwendiyên Îran û Amerîkayê piştî hilbijartinê dê çawa bibin?**

**Dr. Heqî:** Li gor dîtina peywendiyên Amerîkayê piştî hilbijartinan digel Îranê bi wê siyasetê ve girêda ye ka kîjan siyasetmedar û partî biser dikeve. Ger Senator Obama were hilbijartin, li gor dîtina min peywendî digel Îranê dê xweş bibin. Divê em ji bîr nekin xweşbûna peywendiyên Amerîkayê digel Îranê ne ji bo berjewendiya kurdan û herweha Rojhilata Navîn e.

Lê ger Senator McCain were hilbijartin, ne dûr e ew bixweaze herdu rejîmên fitnefiroş, ango Îran û Sûriyê yan bihiloşîne yan jî reform bike.

Senator “Hillary Clinton” dê çaresriyek di wê navê de hilbijêre. Herweha rola cihgirê serokê Amerîkayê jî di serkirdayetiya Amerîkayê de gellek girîng e. Mesele: Hillary bibe serok û Obama bibe cihgir, yan jî bi tersê wê, dê balansek desthilatdariyê de peyda bikin.

Û ger Senator McCain hate hilbijartin û kesek ji xwe hê bêhtir kunservatîv (muhafazakar) kir cihgirê xwe, hingê ne dûr e ku em dê gavên radîkal pêşberî rejîma Îran, Sûriyê heya Tirkiyê de jî bibînin.

Lê bi kurtî û zelalî desthilatdariya Amerîkayê- bila kî bibe serokê Amerîkayê bila bibe, bê qayîlkirin û piştgiriya kurdan li Rojhilata Navîn ew ser nakeve. Kurd di serketina Amerîkayê di Rojhilata Navîn de faktorê yekem in.

Ger tu ji min bipirsî, divê em dinyayek bê fendamentalîsta olperestî, mezhebî, dîktatorî biafirînin. Ango dinyayek ku di wir de cihê fendamentaliya olperestiya Îranê, hebûna El-Qaîdeyê, dîktatoriya beesiyên Sûriyê, Hizbullahan, sîstema Kemalîst ya Tirkiye nebe.


Berendamê/a Partiya Demokrat, Hillary yan Obama?

Heqîqet ew e ku cihê van sîsteman di vê dinya me de nîne û nabe hebe jî. Û herweha bêguman me kurdan jî dinyayek li gor dilê xwe divê ku di wir de cih û rola me kurdan bi awayekî zelal û xurt hebe. Em jî weku hemû miletên azad yên dinê xwedî mafên xwe yên neteweyî bin. Ango em xwedî Kurdistanek serbixwe û azad bin. Da ku kesek nekare me!

**Amerîkî çawa mêzeyî dostîniya Kurdan dikin?**

**Dr. Heqî:** Bêguman bingeha dostaniya Amerîka û Kurdistanê li ser berjewendiya hevbeş ya herdu milet û welatan tê. Herweha tiştek gellek normal ku desthilatdariya Amerîka li ser kurdan cuda cuda bifikire. Lê bi giştî Amerîkî dizanin û dibêjin ku: “Li Rojhilata Navîn dostên Amerîka yên herî nêzîk û pêbawer kurd in!”. Kurdan ev yek di warê piratîkê de îsbat kirine.

**Dr. Cuwan, spas ku te dema xwe ji bo vê hevpeyvînê da me.**

Gellek spas kekê Azad, serkeftinê ji bo we dixwazim.

# Komîteya Amadekar A Kongireya Çardehem A PDK Îranê Agahdariyek Da Çapemeniyê

**Xelkê mafxwaz yê Kurdistanê!**
**Endam û alîgirên xebatkar ên PDK Îranê!**

Her weke hûn dizanin, PDK Îranê weke rêber û rêkxerê tevgera neteweyî – demokratîk a Kurd li Rojhilatê Kurdistanê heta niha bi serbilindane 13 kongire lidar xistine û biryar girtiye ku îsal kongireya xwe a çardan pêk bîne. Bi armanca pêkanîna diyalog û gotûbêjek avaker ji bo her çiqas dewlemendtirkirina kongireya çardan a Partiya Demokrat a Kurdistanê, Komîteya Amadekar a Kongireyê biryar girtiye lînk û cihek taybet ji bo kongireya çardan di malpera Kurdistanmedia.com'ê de ji bo belavkirina mijar û nivîsarên têkildar bi kongirê veke.

Em daxwazê dikin di nivîsîna mijaran de van xalên jêrîn berçav bigirin:

1. Mijar û babetên xwe bi Fayla WORD bişînin û di nivîsaran de, rastnivîsîna Kurdî bi tevahî berçav bigirin.
2. Ji pêşgotina dûr û dirêj xwe biparêzin û rastarast herin ser mijarê.
3. Demekê hûn rexneyê ji yek an çend bendên bername û pêrewa hundirîn digirin, benda pêşniyarkirî a xwe jî bas bikin.
4. Hindî we çê dibe, bila mijar kurt bin heta mifaha baştir ji wan bihê wergirtin.
5. Endam û alîgirên eşkere ên partiyê mijaran bi navê xwe binivîsin û endamên nepenî bi nasnav mijarên xwe bişînin.
6. Ew mijar û nivîsarên ku di malpereke din de hatine belavkirin, li ser malpera navendî a partiyê nahên belavkirin.

Têdîtin:

Tenê ew mijar tên weşandin ku ji bo vî navnîşanî hatibin hinartin:

**info@kurdistanmedia.com**

**Komîteya Amadekar a Kongireya Çardehem a Partiya Demokrat ya Kurdistana Îranê**
**27.04.2008**

# Komara Îslamî A Îranê Xwe Bi Xwediyê Axa Kurdistanê Dizane

Roja 11'ê Nîsana 2008'an, Nûçegihaniya "IRNA"(Nûçegihaniya fermî a Komara Îslamî) nûçeyek bi sernivîsa "Civîna ewlekarî a welatên cîran ên Îraqê sibê li Şamê dest pê dike" belav kir û tevî vê nûçeyê xerîteya coxrafiya cîranên Îraqê hatibû danîn/weşandin ku nexşeyek destçêkirî yê Komara Îslamî bû.




Di vê xerîtê de erdê çar parçeyên Kurdistanê xistibûn ser Îranê û bi **Kurdistana Îranê** hatibû binavkirin. Eva jî tê wê wateyê ku Komara Îslamî bi çavê temahkar û dagirkerane ji axa Kurdistanê dinêre ku xaka Kurdistanê di navbera çar welatan de hatiye parvekirin. Eva jî di halekê de ye ku gelê Kurd piştî çend sedsalan xebat û tekoşîn ji bo bidestxistina maf û azadiyên neteweyî ên xwe ji aliyê tu yek ji welatên dagirker ên Kurdistanê ve mafên herî biçûk û destpêkî jê re bi rewa û berheq nehatiye zanîn. Bêguman Komara Îslamî a Îranê jî ku yek ji wan welatan e û nêz 30 salan e desthilatdariyê bi ser beşek ji Kurdistanê(Rojhilatê Kurdistanê) de dike û bi metod û awayên herî hov û nemirovane keç û xortên Kurd bi hêcetên cuda cuda ji nav birine û şerên qurs û giran bi ser gelê Kurd sepandiye ku di encamê de hezaran kes ji xebatkarên Kurd jiyana xwe ji dest dane û bûne goriyên polîtîka wan.

Danîna nexşeyek wiha şovenîstî û şerfirotin û dagirkarî, armanca Komara Îslamî ye û hewce ye Kurdên beşên din ên Kurdistanê jî hay ji wê pîlan û kompoyê hebin û bi hişyarî ve gelale û kompoyên wê rejîma dîktator eşkere û şermezar bikin.

Komara Îslamî di halekê de ev xerîte belav kir ku tevî kirîz û qeyrana herî mezin rûbirû ye û civata cîhanê bi komdengî daxwazê jê dikin ku dest ji zaxkirina Uraniyûmê berde, lê ev rejîmê tu pûte û rêzê ji bîr û raya giştî a cîhanê negire û desthilatdarên vê rejîmê jê ve ne ku dê bikarin li hember hemû welatên pêşverû ên dinyayê de bisekinin û bigihîjin armanc û meremên xwe ên dijî mirovî.

## Şiroveya Peyvên Siyasî

Berhevkar: Omîd Esxeran

omid_anbi@yahoo.com



# LÎBERALÎZM

Têgiha Lîberalîzmê ji peyva latînî a "Liber" bi wateya azad hatiye wergirtin û bi giştî maneya azadîxwaziyê bixwe ve digire. Lîberalîzm hizrek e ku alîgirên wê daxwaza azadiyê dikin û gellek micid piştgiriyê ji teoriya han dikin û li ser vê baweriyê ne ku mirov azad ji dayîk dibe û divêt bi awayekî serbest jiyana xwe bidomîne û bê hebûna tu gefekê bîr û rayên xwe eyan bike. Lewra ew li ser vê baweriyê ne ku nabe dewlet astanegan li ser rêya azadî û serxwebûna takekesan çê bike û derfeta derbirîna azad ya bîr û hizran ji wan bistîne. Bi baweriya wan, eva bona vê çendê ye ku azadî were geşandin, bi mercekê ku ew azadiye xisarê negihîne azadiyên kesekî/a din. Bi kurtî lîberalîzm anku pêşvebirina azadiyan bi awayekê ku di her dem, qonax û warekê de, berî hemû buhayekî din be. Rêbaza lîberalîzmê di sedsalên 18 û 19’an de li welatê Birîtaniyayê gihîşte qasê herî bilind yê pêşveçûna xwe û piştre jî bîr û hizrên felsefî ên Almaniya û Firansayê tevlî wê bûn û eva jî bû sedem ku hin guhartin tê de pêk bên. Lîberalîzm zêdetir tekezê li ser du warên siyasî û aborî de dike. Di warê siyasî de li ser vê baweriyê ye ku divêt takekes azad û serbixwe bin û takekesxwazî ji aliyê dewletê ve were parastin, serbarê vana jî gerek delîve ji bo hilbijartina azad, azadî û azadiya ramanê a gişt xelkê xweş be. Li gor hizrên **Can Lak**, fîlesofê Birîtaniyayî, divêt guhartinek wiha çê be ku takekes nekare kêmtirîn xisarê bigihîne azadiya kesên din. Di warê aborî de jî, lîberalîzm daxwaza serxwebûna takekes û berfirehtirbûna çalakiyên wî/ê dike. Lê eva bi mercekê ye ku tu astengek li hember danûstandinan çê nebe.

Li welatê Birîtaniyayê bizava lîberalîzmê di demekê de gihîşte niqteya bilindahiya xwe ku dewletê xwest yasayek taybet bi kar bişopîne. Herçend ku hizirvanên lîberal heya qasekê digel rêbaz û yasayên bîme, tenduristî û wd… hevsoz bûn, lê li dijî her kiryarekê bûn ku asteng li hember geşekirin û pêşkevtina wê pêk anîban.

**Qonaxên geşekirina Lîberalîzmê**

Bi liberçavgirtina vê çendê ku Birîtaniya navenda serhildana lîberalîzmê ye, ji bo destnîşankirina qonaxên lîberalîzmê divêt em qonaxên geşekirina wê li welatê Birîtaniyayê şirove bikin ku pêkhatî ne ji:

1. **Qonaxa Bint Hamîzm**: Qonaxa han vedigere bo **Bintham** fîlesofê Birîtaniyayî di salên navbera 1776 – 1832’an, wate dema belavbûna yekemîn berhema wî. Di vê qonaxê de, lîberalîzm pêkhatî bû ji radîkalîzmek rêxistî ku ser bi hin sîstem, dezgeh û navendan bû. Wê demê lîberalîzmê alîgirî ji hin hizr û ramanan dikir ku pêwendî bi aborî, siyaset û dadveriyê ve hebû û her wiha alîgirî ji parastina azadiya ramanê, karkirin û takekesxwaziyê dikir.

**2. Qonaxa Can Stwart Mîl û Spensêr(1880 – 1832)**: Qonaxa han pêkhatî bû ji bîr û hizrên qonaxa Bêntham tevî hin guhartinên ku ji aliyê **Can Stwarrt Mîl** ve hatibûn pêşniyarkirin. Her wiha hin bingehên sosyalîzmê tevlî wê bûn ku tevî felsefeya Bêntham hevhêl bûn. Wî her wiha xizmetekî din jî encam da ku ew jî vekirina deriyê gilî û gazinokan ji felsefeya Bêntham bû ku alîgirên wê yên tundrew bi hemû awayekê hewla parastina wê didan.

**3. Qonaxa Tomas Hîgil Girîn(1880 şûn de)**: Di qonaxa han de ji aliyê Tomas Hîgl Girîn û îdealîstên din hewlek zaf hate dayîn ku hizra lîberalîzmê were vejandin. Ravekirina Hîgil derheq lîberalîzmê pêkhatî bû ji lîberalîzmek avabûyî li ser îdealîzma exlaqî ku vedigere bo serdemê Kant. Navhatî di demên hewce de, maytêkirina dewletê di kar û barên aborî de bi rewa û berheq dizane.

**4. Qonaxa parvebûna lîberalîzmê**: Heyamekê piştî Hîgil, lîberalîzm dabeşî du hizran bû ku pêkhatî bû ji hizra tundrew û hizra miyanerew. Du hizrên han bi awayî ne:

1. Lîberalîzma Konservatîzm( azadîxwaziya miyanerew)
2. Lîberalîzma Sosyalîzm

Rohn û eşkere ye ku bi dabeşbûna bîr û hizrên sereke ên lîberalîzma, lîberalîzma siyasî kete ber gefan, bi awayekê ku azadiya hizr, raman, peyivîn û rexnegirtinê nêzîkî jinavçûnê bûn. Lewra hin kesan hewl dan da ku modelek têkel ji her du rêbazên han, bi awayekê ku bingehên sereke ên lîberalîzma siyasî werin parastin û di heman demê de jî aborî heya qasekê ji aliyê dewletê ve were kontrlo û çavdêrîkirin, ava bikin. Eva bona vê çendê ye ku kompaniya û saziyên mezin nekarin nerasterast mafê takekesxwaziyê ku bingeha lîberalîzma siyasî tê hesibandin, ji holê rakin. Biliberçavgirtina vê çendê, em dikarin felsefeya han a lîberalîzmê ku piştî serhildana du girûpên navhatî pêk hatibû, weke tevavkerê qonaxa sêyem a lîberalzîmê bihesibînin û bi vî awayî lîberalîzmê bi ser sê qonaxan de dabeş bikin.

**Cudahiya di navbera demokrasî û lîberalîzmê**

Demokrasî û lîberalîzm di vî warî de ji hev cuda ne ku demokrasî hikûmeta gel e. Bi vî awayî her tiştek ku gel bixwaze(heta zordarî û sînordarkirina azadiyên takekesan)divêt were meşandin. Kesên lîberal li dijî her navendeke desthilatdariyê ne ku bixwaze azadiyan berteng bike, heta heger navenda han bixwaze yeksaniya civakî, ewlehî û bi giştî buhayên din, ji bilî azadiyê bihêz û dabîn bike. Bê hebûna demokrasiyê em nikarin ji lîberalîzmê re bifikirin, çunku di destpêkê de divêt gel desthilatdar be hetanî ku bikare azadiyên takekesî ewle bike, lê bê hebûna lîberalîzmê derfet û keysa vê çendê heye ku demokrasî were hizrandin. Bawermendî bi lîberalîzmê tu pêwendiyek bi lîberalbûna civakê ve tune ye, lê heke lîberal bixwazin nêrînên xwe ên siyasî û civakî bînin holê, wê demê hewce ye ku civak civake lîberal be.

Di civakeke lîberal de hemû kesek dikare azadîxwaz be û di bin dirûşma han de, hewla cihgirkirina armancên taybet ên xwe bide.

**Çavkanî:**

**Ferhengî Ramiyarî Nîga “Azad Weledbegî”**

**Danêşnamêyê Siyasî (Politicial Dictionary) “Daryûş Aşorî”**

# Rewşa Nebaş A Xwendingehên Kurdistana Îranê Ji Warê Aborî Ve

**Rapor: Rojhilat**

Rewşa aloz a aboriya Îranê bandoreke xirab li ser birêveberiyên kar û barên dewletê heye, bi taybetî ew beşên ku tenê bi hezîneya dewletê birêve diçin û dahata wan tune ye, anku xwediyê dahateke nebaş in. Du Wezaretên Zanist, Tendurustî û Perwerdehiya Bijîşkî û Wezareta Perwerde û Elimandinê ku her du wezaretên dewletî ne, tevî rewşa xirab a aborî û pirsgirêkên sereke berbirû ne.

Wezareta Zanist, Tendurustî û Perwerdehiya Bijîşkî, carna ji bo çareserkirina pirsgirêka bêdahatî û kêmbûna budcê, neçar dimîne ku nirxa vîzît û dermanan zêde bike, lê bi vî awayî jî nikare pirskirêka han çareser bike. Ji ber ku Îdareya Bîmeyê hezîneya dermanan dabîn nake û roj bi roj nirxa pêdiviyên dermanî jorde diçe. Pirsgirêka han bûye sedema nerazîbûn, girevgirtin û destlikarkişandina perestarên nexweşxaneyên pêşgirî û pêdeçûn bi rewşa nexweşên Diyalîzî.

Herçend miaşê perestarên beşa nexweşiya Diyalîzê sala borî ji aliyê dewletê ve hate zêdekirin, lê jordeçûna roj bi roj a nirxa pêdiviyên xelkê, çareserbûna vê pirsgirêkê bêencam hêlaye.

Wezareta Perwerdeyê ji sedî sed girêdayî bi dewletê ye, ji ber ku xwediyê tu çavkaniyeke aborî a taybet bi xwe nîne.

Li gor qanûna bingehî a welatê, xwendin heya qonaxa dawî a navendî xorayî û bêpere ye û dabînkirina her cure pêdiviyeke xwendinê, bo hemû xwendekaran li stûyê dewletê ye.

Ji ber vê çendê ye ku her sal li dema destpêka navnivîsîna xwendekaran ji bo xwendinê, Wezareta Perwerdeyê bi rêya Televîzyon, Radyo û weşanên îdareyî, radigihîne ku pêwîst nake malbat ji bo navnivîsîna xwendekaran hezîneyekê bidin navendên xwendinê û xwendegeh jî nabe ji tu kesê pere bistînin, lê di dawiyê de eşkere bû evane ku hemû propagandayên dewletê bûn.


Dibistanek ku ji ber pirsgirêkên aborî bi vî awayî hatiye çêkirin

Tevî destpêka sala xwendinê, divêt budceya Wezareta Perwerde û elimandinê bê dan. Lê piştî çend mehan budceya vê wezaretê ji aliyê dewletê tê dan û di navbeyna parêzgeh û bajaran de tê dabeşkirin. Ev yek jî gellek pirsgirêkan ji bo berpirsên xwendingehan pêk tîne.

Berpirs ji ber nebûna budcê neçar dimînin heqê av, elektirîk, gaz û telefon û heta majîkên (wayt bord)ê bi xwe dabîn bikin û bi mehan kaxeza ji bo nivîsînê ji dukanan bi qer tînin. Di rewşeke wiha de, berpirsên xwendingehan bi neçarî daxwaza alîkariyê ji malbatan dikin, hêjayî gotinê ye ku hinek caran jî berpirs ji aliyê Wezareta Perwerdehiyê ve neçar bi vî karî dibin. Di sala xwendinê a 1386-87'a Rojî(2007-2008) de Wezareta Perwerdehiyê berpirsên xwendingehan neçar kirin ku ji bo dabînkirina gazê ji bo navendên xwendinê daxwaza arîkariyê ji malbatên xwendekaran bikin, lewra eşkere dibe ku dewlet heta gaz û nefta xwendingehan jî bi vî awayî dabîn nake.

Herwekî me qala wê kir divêt were gotin ku, îsal budceya xwendingehan gellek dereng gihîşte destê berpirsên xwendegehan û ev yek bûye sedema pêkhatina pirsgirêkan.

Bo mînak li bajarê Merîwanê, budceya xwendingehan di meha Reşemê(Adarê) de gihîşt destê wan. Ev yek bû sedema vê çendê ku asteke zaf ji berpirsên navendên xwendinê pêdiviyên navnivîsînê ji bazarê bi qer bînin. Li gor çavkaniyan, xwendingehên Rojane û Şevane a devera Çinare li bajarê Merîwanê, her yek 20 milyon tûmenan qerdar in û bi tu awayekê nikarin vê perê dabîn bikin û hewl û cehdên berpirsên xwendingehan bêencam mane.

Miaşê zêdekariya mamostayan nêzîkê 5 mehan e ku nehatiye dan, hinek mamostayan heqdestê du salan wernegirtine û ne xuya ye ku dê çi demekê bigihîjin heqdestê xwe.

Hêjayî gotinê ye ku dewleta Ehmedînijad, budceya salê di demekê de diyarî kir ku nirxa her bermîlek neftê 48 Dolaran bû, lê di destpêka sala nû de nirxa neftê jorde çû û dewletê du qat zêdetir petrol firotiye.

Gelo ev dahate ger negihîje destê girûpên terorîstî yan ji bo kirîna alav û amûrên binkeyên Etomî nehê terxankirin. Başe di dest kê de ye, çi jê hat?

Dîmenek ji îmkanatên xirab ên avahiyên xwendingeheke Îranê


# Bi Beşdariya Nesrîn Qasimlo Semînara Wekheviyê Hat Lidarxistin

Roja şemî, 19.04.2008'an, semînareke berfireh li jêr navê "Mafê Wekheviyê" ji aliyê Yekîtiya Jinên Demokrat yên Kurdistana Îranê li bajarê Wêstros a welatê Swêdê hat lidarxistin.

Di semînara han de pitir ji 300 kes ji endam û alîgirên YJDK Îranê li Swêdê û çend welatên din weke Almanya, Norwej û Fînlandê beşdar bûn.



Bona dewlemendkirina zêdetir a basên semînarê, komek kesayetiyên bi nav û deng û pispor di vî warî de weke **Nesrîn Qasimlo**, hevjîna Şehîd Dr. Qasimloyê nemir, **Miryem Elîpûr**, pispor û çalaka mafê jinan û Ravêjkara Komîteya Navendî a PDK Îranê, **Dr. Xosrew Behramî**, Civaknas û Cîgirê Komîteya Navendî û **Ebdula Hicab**, Karnasê Zanista Siyasî hatibûn vexwendin.

Di destpêka semînara han de **Şikofe Qubadî,** endama Ravêjkar a Komîteya Navendî ya PDK Îranê, baseke kurt li ser mijara mafê wekhev pêşkêş kir.

Piştre xatûna Nesrîn Qasimlo, baseke girîng li ser erk û wezîfeyên jinên Kurd li derveyî welat pêşkêş kir. Nesrîn Qasimlo di dawiyê de amadebûna xwe ji bo her terze hevkariyekî tevî YJDK Îranê bona gihîştin bi armancên rêxistina han eyan kir.

Piştre Dr. Xosrew Behramî, baseke berfireh derheq bizava jinan di Komara Îslamî a Îranê de pêşkêş kir.

Di doma semînarê de Miryem Elîpûr li ser girîngiya bawerî hebûna jinên Kurd bi xwe pêşkêş kir.

Di dawiya semînarê de Ebdula Hicab baseke pirbiha û girîng li bin navê "Jin goriyên siyaset û civakê" pêşkêş kir.

Hêjayî gotinê ye ku di semînara han de çend helbest û stran jî hatin pêşkêşkirin.

## Girûpa Parastina Mafên Rojnamevanên Jin Hate Avakirin

Bona parastina mafên Rojnamevanên jin, li bajarê Hewlêrê di konferanseke çapemeniyê de, avabûna **Girûpa Parastina Mafê Rojnamevanên Jin** hate ragihandin.



Roja 20.04.2008'an, bi henceta 110'mîn salvegera Rojnamevaniya Kurdî de, bi beşdariya hejmarek ji rewşenbîrên bajarê Hewlêrê, nûnerên rêxistinên jinan û nûnerên çapemeniyê, li bajarê Hewlêrê di konferanseke çapemeniyê de, avabûna Girûpa Parastina Mafên Rojnamevanên Jin hate ragihandin.

Di destpêka konferansa çapemeniyê de, **Ravêj Obêd**, endama vê girûpê diyar kir ku piştî serhildana sala 1991'an li Kurdistana Başûr, rojnamevanên jin di rojnamevaniya Kurdî de, bi terzekî berçav çalaktir bûne û roleke baş girtine pêşberî xwe.

Herwiha **Hawjîn Heme Reşîd**, yek ji endamên din ên girûpa han, di konferansa çapemeniyê de weke yekemîn karê vê girûpê, li dijî terorkirina rojnamevana jin, Bêgerd Husên ku di şeva 18 li ser 19 ya vê mehê li bajarê Hewlêrê bi destê hevjînê xwe yê berê piştî destdirêjiya seksî, bi kêrê hatibû kuştin, daxuyaniyeke nerazîbûnê pêşkêşî Serokatiya Herêma Kurdistanê, Parlamantoya Kurdistanê û Fedrasyona Rojnamevanên Cîhan û Kurdistanê kir.

## Komek Ji Mamostayên Kamyaranê Di Daxuyaniyekê De, Piştevaniya Xwe Ji Ferzad Kemanger Eşkere Kirin

Roja 21.04.2008'an, komek ji mamostayên bajarê Kamyaranê di daxuyaniyekê de tevî mehkûmkirina biryara îdamkirina **Ferzad Kemanger**, daxwaz ji tev mamosta, xwendekar, çalakên çandî, siyasî û gişt çîn û qatên civaka Îranê kirin ku bi awayekî yekdeng û hevaheng û ji rêyên aştîxwazane weke (derkirina daxuyaniyan, girtina civînên aştîxwazane, beşdarîkirin di kampayna rizgariya Ferzad Kemanger û ...) ji berpirsên dezgeha dad a Îranê bixwazin ku carek din Ferzad Kemanger vegerînin nava malbata wî.



Hêjayî gotinê ye ku Ferzad Kemanger du salan berî niha bi buxtana hevkarîkirin tevî yek ji partiyên siyasî ên neyarê rejîma Îslamî bi cezaya îdamê hatiye mehkûmkirin.

## Pitir Ji 74 Zarokên Girtî Di Îranê De Li Benda Îdamê Ne

Rêxistina Mafê Mirovan û Demokrasiyê li Îranê di raporekê de ragihand: Niha pitir ji 74 zarok li girtîgehên rejîma Îslamî a Îranê li benda birêveçûna biryara îdamê ne.

Li gor rapora han biryara lidarvekirina **Bêhnûd Şocaî**, ku li temenê 17 saliyê bi buxtana kuştina kesekî di pevçûneke bikom de hatiye girtin, dê vê heyamê birêve here.

Ev nûciwan zivistana sala 2005'an, ji aliyê Taya 74 a Dadgeha Cezayên Parêzgeha Tehranê, bi îdamê hate mehkûmkirin û ji aliyê Taya 33 a Dîwana Bilind a welatê biryara han hate pesendkirin.

Saziya Efûya Navneteweyî di daxuyaniyekê de daxwaza betalkirina biryara îdamkirina Bêhnûd Şocaî kiriye.



Serbarê nerazîbûna berfireh a saziyên parastina Mafê Mirovan derheq îdamkirina zarokan li Îranê, rejîma Komara Îslamî a Îranê biryarên îdamkirina zarokan birêve dibe.

# KOMELAYÎBÛNA MIROV



ADAR JIYAN
adarjiyan@mynet.com

Mirov heyineke komelayî ye. Komelayîbûn bi sê radeyên bingehîn re bi dest dikeve.

Komelayîbûna mirov an ji ber neçarî û bêgaviya wî/wê ya ku bê tirs û xof bijî, an jî ji ber daxwaza wî/wê ya ku di nav civakê de bi serbilindî bijî ye. Lewre her mirov bi taybetî di nava civatekê (wekî malbat, êl û derdor) de belê bi gelemperî jî di nava civakekê(wekî nîjad, gel neteweyekê) de dijî. Her mirov xwe bi xislet û taybetiyên civat an jî civaka xwe radipêçe. Peyre xislet û taybetiyên wê civakê( an jî kom û civatê) li gora fikr û ramana xwe ya xweser û bi vîna xwe ya azad dineqîne an jî red dike. Liv, bizav û pêwendiyên wî/wê jî di van radeyan de dikemile û digihîje encamekê. Hersê radeyên (merhaleyên) komelayîbûnê yên ku mirov arasteyî mirovbûnê dike ev in :

1. Civakîbûn,
2. Takekesbûn
3. Gerdûnîbûn

**1. Civakîbûn:** Digel ku mirov ji derdora xwe bandorê digire ewqas jî bandoreke mezin li ser derdora xwe dihêle. Nemaze her takekes bi hevhîkarî û hevbandoriyek xurt re rêbaz û pêwendiyên danûstandina civaka xwe fêr dibe û hin bi hin xwe dişibîne wê civakê. Di encama wê fêrbûnê de radeya ahengiya takekes û civakê derdikeve holê. Ango ev merhaleyeke wisa ye ku domana ku takekes bi ceribandin, behredarî, pêwendî û taybetiyên xwe yên xwser re hêmayên vatiniya civakê pêk tîne. Tevger û bizavên ku bi behredariyên takekes ên ku bi rêya perwerdehî û hîndekariyê diperisin, di vê çarçoveyê de pêk tên. Her wiha di vê merhaleyê de domana zarokatî û ciwantiyê jî pir girîng in. Nemaze di domana zarokiyê de malbat belê di ya ciwaniyê de jî dibistan û derdor roleke diyarker dileyîzin. Sê xuyanekên domana civakîbûnê hene:

a. Kepsên çandî
b.Yekparebûna çand û takekesiyê
c. Lihevkirin û ahengiya bi derdor re

2. **Takekesîbûn:** Takekesîbûn, hilbijartina ranavtin (telqînkirin) û bandorkirina takekes ya ku xwe bi xwe pêk tîne ye. Têkiliya navbera takekes û civakê naşibe ya navbera kûklabaz û kûklayên(bûkoke û pêlîstokên) wî. Lewre ehliyet û têrîkirineke takekes ya ku qeware(qalib), tefger û reftarên ku ji aliyê civakê ve li ser wî/wê têne ferzkirin, bipejirîne an jî red bike heye. Ev yek jî ji helwest û rawestina mirov ya takekesîbûna wî/wê tê. Takekesîbûn, tenê ne têkoşîna navbera takekes û civakê ye; her wiha ew, têkoşîna takekes a behredariya wî/wê ya ku bi perwerdehiyê dixemile ye jî. Mirovê/a ku xwe li gora rêpîvanên demê negihîne û perwerde neke, ne pêkan e ku ne bi civak û derdora xwe re û ne jî bi gelên dinê re di nav ahengiyekê de be. Takakesîbûn, ne qutbiriya navbera mirov û civakê ye; berevajî wê xurtkirin û zexmkirina pêwendiyên navbera mirov û civakê ye. Takekes û civak wekî nenûk û goşt in. Ne civak bê takakes û ne jî takekes bê civak dibe. Herdu wekî du hêmanên bingehîn hem hev û din dikemilînin hem jî temam dikin.

3. **Gerdûnîbûn:** Merhaleya komelayîbûnê yek jê jî gerdûnîbûn e. Gerdûnîbûn bi xwe cîhanîbûn, navneteweyîbûn û mirovbûn e. Lewre cîhan ji mirov û heyberên ku pêdiviyên mirovahiyê bi cih tînin pêk tê. Her civak li ser erdnîgariya xwe hem bi civak û xwezayê û hem jî bi heyîn û heyberên dinê re di nav têkiliyekê de ye. Ev têkilî, hemû mirovên dinê hewcedarî danûstandineke gerdûnî û navneteweyî dike. Her mirov di bin siya asîman û tîna rojê de dijî. Kanî, robar, deşt, çiya, zozan, derya û omanên bê ser û ber hemû xweşikiyên xwezayê yên hevpar in. Av, hewa, dar, ber, fêkî, zebze, xurek û vexurekên dinê tev ên mirovahiyê ne. Ev tişt hemû hincet û egerên têkildanîna navbera mirov û mirovahiyê ne. Ji bo lêxwedîderketin û parastina van heyîn û dewlemendiyan jî hewcetî bi gerdûnîbûnê heye. Gerdûnîbûn, radeya komelayîbûnê ya herî berz û bilind e. Her wiha ya gelekî girîng û manîdar e jî.

Hersê merhaleyên komelayîbûnê dişibin gihanekên jiyana mirov. Ango her yek ji wan wekî pêlikên kemilîna jiyanê ne. Heta ku yek nekemile ya din dest pê nake û nakemile. Jixwe jiyana civakan jî dişibe ya mirovan. Çawa ku jidayikbûn, zarokî, ciwanî, navseretî û kal û pîrîtiya mirov wekî merhaleyên jiyana wî/wê hev û din temam dikin, bi heman awayî civakîbûn, takekesîbûn û gerdûnîbûn jî wekî merhaleyên komelayîbûnê hev û din temam dikin. Heta ku civakîbûn pêk neyê takekesîbûn û heta ku takekesîbûn jî pêk neyê, gerdûnîbûn pêk nayê.

*Kaniya Helbestan*

## Dê navê te bana



**Kamran Simo Hedili**

Çavên
şevê
di awirên seyê har de
li min dinêrin
Li min dinêrin
şevên gurî
ev şev
dojaha Dante ne
çirûska roniyê
di siya van şevan de nîne
hevok
di valahiya bêhnokan de
bêdawî dimînin
Peyv
di dêmên kaxizê de
dibin hibra sar
tu
hezkirina min
dizanî
di rêzikên hê negotî de
kenê te
di dilê min de
bihar e
kenê te
şabûna kulîlkên rojê
di dilopên xunava wan de
hêlîn çêkirî
û germkirina hêviyên min e
min zanîbû
bikenim
çêja mizdana dêmên min
di nav destên te de ken bû
min zanîbû
bikenim
ken
di rondikên derya dagirtî de
winda bû
di zîldana rayên Kîjan gulê de
stêra sibehê dê derê
di Kîjan asoyî de
roj dê werê
vê kêliyê
a niha
dema
girî di nava min de
digirî
eger
ev helbesta min
a dawî bana
dê bi hesret
xemgîn
dûrî têgihiştina aqil
û hemû
dê peyvek bana
ew peyv
dê navê te bana

# Firûx Helbestvaneke Pêkhateşikên

N: Fatih Salihî
Amadekar: Selîm Zencîrî

Tu şik û gumanek nîne ku **Firûx Feroxzad** yek ji helbestvanên herî mezin û bi nav û deng yên Îranê û herwiha yek ji jinên mezin yên civaka Îranê ye û bi giştî gellek şareza û pisporên warê torevaniyê li ser vê baweriyê ne ku pêkhateşikênî û pêşengiya wê di şikandina kevneşopan de tevî dîtin û ramana taybetî a navbîrî’yê li hemberî jiyan û helbestê, kesayetiyek taybetî bi Firûxê û tameke xasmanî bi helbestên wê bexşiye ku heya niha jî di edebiyata hemdem a Îranê de tu kesên bi vî awayî nebûne.

Firûx di jiyan û helbestên xwe de hin taybetmendiyên berçav hene ku wê ligel helbestvanên din yên serdemê xwe cuda dike ku emê li vir îşare çend ji wan xalan bikin.

1. Firûx Feroxzad, jinek e ku li dijî hemû yasa û pêkhateyên kevn yên malbatê rabû û ew serhildane di jiyana taybetî û herwiha helbestên wê de reng vedide û vê yekê weke pirsa sereke a Firûxê û helbestên wê derdixe. Firûxê deb û edetên malbata xwe, mêrê xwe û ew kesê ku jêre hez dikirin, xiste bin pê û çandek nû ava kir ku heya wê demê bêmînak bû. Azadiyek ku tenê Firûxê hest pê dikir ku nebûna wê azadiyê ta çi radeyekê derb û zirar bi jiyanê gihandiye. Di şikandina kevneşop û tîtalên yekemîn û duyemîn de, mêr serdest e. Di ya sêyemîn de jî ew hevalên xwe di çarçoveya malbatek xêzandar de hildibjêre. Firûxê sîstema malbata xwe têkdaye û renge hin jinên din jî ev kar kiribin û dûr nîne ku di vê derheqê de Firûxê rêvîng û alîgirên xwe jî hebin. Lê pirs eva ye ku anîne ziman a pirsek bi wvî awayî di helbestê de û xwedîtin di nav helbestê de û bûna du hebûn, anku jiyan û jiyan di helbestê de têkelkirina herduyan bi hewldanek bêrawestan û geriyana berdewam li dû wateyên wan duyane di helbesta bûn de heya îro beşeke here girîng û xasmaniyek diyarîkirî a Firûx Feroxzadê ye.

Xoşewîstî û hezkirin di helbestê de eva nîne ku îro helbestvan hez ji keseke/î dike û sibê hez ji kesek din. Xoşewîstiya helbestê di vê yekê de ye ku di navbera kar û tama jiyanê û kar û tama helbestê de bêalîtiyek tewaw hebe. Firûxê her bi sedema kevneşopşikêniya xwe ve gellek bi hêsanî karî bêy ku di navbera xwe û helbestên xwe de navberekê danêt, hemû rastiyên mejiyê xwe ku baweriyek tewaw pê hebû, weke helbest bîne ser kaxezê û weke helbestên jinek pêkhateşikên ku hemû çarçoveyên helbestê dinase, edebiyata hemdem a Îranê pê bixemilîne.

2. Her çend ku mêrê Firûxê “**Perwîz Şapûr**” jî mirovekî vekirî bû, lê Firûx piştî cudabûna ji mêrê xwe tu car nekarî take kurê xwe **Kamyar** bibîne ku eva jî heman çanda mêrserdest bû ku reh û rîşalên xwe di yasaya Îranê de dakutaye û jin qet nikare heya dema ku bav mabe, qeder û mezinkirina zarokên xwe bigre stû. Her ev yeke kerb û kîna Firûxê di helbestê de dide kifşê. Firûx bi mafê xwe dizane êrîşê bike ser hemû wan yasa û rêsayan ku mafê jinê bin pê dikin. Lewra di helbestên xwe de alahilgirê dijberiya vê newekheviyê ye û gellek cehd û xebat kir bi rexnegirtin ji sîstemek han rê ji bo bêhnkêşan û rewabûna xwest û daxwazên xwe bibîne.

Fîlma “Gulan” tepeserkirina û çewsandina jinan di nav civaka vê demê a Îranê de nîşan dide. Êşandin û sitemên ku bi dehan sal piştî Firûxê, niha jî civata Îranê bi destê wan ve dinalîne. Firûx di helbestên xwe de li hember wan newekheviyê nerazîbûna xwe nîşan dide û bi xewnekî tal û bitirs bi nav dike.

Firûx di wan serdeman de, helbesta stembariyê dibêje, reben û mezlûmbûna jinan û zarokan li hemû ew xwastek û daxwaziyên ku bi sedema sîstemeke mêrserdestiyê hatine, jibîr kirin.

Lewra dibêje: “Dîwar hene, dîlî û êxsîrî heye û serketin bi ser vî dîwarî û vê êxsîriyê de eseh e û eva gelaleya sereke a azadiyê ye”.

3. Di dehsala 30 a vê sedsala Rojî de, di wê serdemê nexweş ku piştî derbeya 28’ê Gelawêja 1332’an hatibû rojevê, du helbestvanên girîng taybetmendiya siyasî hebûn. Serbarê vê yekê, di wê demê de **Nîma Yûşîç** zindî bû. Piştre jî **Mehdî Exevan Salis** helbestên xwe ên herî baş di wî çaxî de vehunandin. Ew du helbestvan, **Ehmedê Şamlo** û **Firûx Ferûxzad** bûn.

Şamlo li hember jinê û Firûx jî li hember mêr helbestê dinivîse. Ji bo xuyakirina vê têkiliyê, Şamlo bi zimanê pexşanê helbestê distire û Firûx ji bo eşkerekirina vê pêwendiyê çarînan dinivîsîne. Di navbera ew tiştên ku Şamlo dibêje û form û awayê gotina wî navbeynek tune ye. Lê Firûx di çarînan de ku berê mêran ji wê şêwaz û şeklê mifah distandin, nerazîbûn û kerb û tûrebûna xwe li dijî mêr û hezkirina xwe jî dubare li hember mêrî û ew xerîza ku bi çavkaniya jiyanê dizane, tîne ziman.



Ev tûrebûn û hezkirine, bêguman form û şêwazan dişkîne û bi vî awayî ye ku pêkhateşikênî di edebiyata Firûx de digihîje asta xwe a herî bilind.

Lê Firûx bi vê çendê jî razî nabe û bona vê yekê ku kerb û nifretê li xwe û li hember ew pirsên ku jiyana wan û her wiha azadiyên wan tûşî alozî û tevliheviyê kiriye, forma çarînan jî dişkîne heta şêwazeke azad û teqez(ferzîne/mutleq) peyda bike. Bi baweriya pirraniya karnas û pisporên wêjeyê, zimanê rastîn û realît yê helbesta jinê di vê qonaxê de çê dibe.

Bi liberçavgirtina vê çendê ku Firûx hertim pêkhateya sereke a şêwazên wêjeyî dişikand û di ziman û forman de guhartin pêk dianî, ev guhertinane, helbesta jinê weke rastiyeke dîroka edebyata Îranê der xistiye.

4. Helbestên Firûxê, bêguman helbesteke nerazîbûnê ye û ji vê nêrînê ve piraniya helbesetê watenasîn e. Bona vê yekê ku jin di biyava Şêir, kurteçîrok an romanê de kar û xebatên micid û pêwîst bikin û cîhanê û hêvî û xweziyên jinane ên takekesî yên wan civakî û dîrokî bide nîşandan û bide xuyakirin, lewra neçar dibe ku ji xwe û derdor û hundirê xwe zanyarî û agahiyan bide derê. Ev nêrîne di hlbestê de dikaribe weke ramana afirînerê helbesta neraziyane be, ji ber ku cîhana jinê bi duristî nenaskirî ye û nehatiye xuyakirin. Derxistina zanyariyan ji rêya nivîsîn û pêwendîdana xwendevan bi jiyana malbatî û takekesî a helbestvan an her nivîsareke din, dibe berpirsiyariyeke mezin û micid di biyava civatê de. Firûx bi yek ji wan kesan tê hesibandin ku ev kare kir û pêşengbûna wê ku li ber biwêrî û netirsbûna wê çavkaniyê digire, wisa jê kir ku Firûx bibe leheng û ostûreyek. Pêşeng û ostûreyek ku heta niha jî di nava jiyana me de pirr kêm in.

# 110'mîn Salvegera Rojnamegeriya Kurdî Pîroz Be

Roja 22'yê Nîsana 2008'an Rojnamegeriya Kurdî bû 110 salî. Sed û deh salan berî niha, di sala 1898'an de Mîqdad Mîdhed Bedirxan li bajarê Qahîreya Mîsrê yekemîn rojnameya Kurdî bi navê **KURDISTAN** der kir. Rojnameya KURDISTAN weke gaveke neteweyî û mezin li xerîbî û dûr ji axa Kurdistanê hate weşandin û destpêka xebateke rewşenbîrî û neteweyî tê hesibandin û her sal kurd wê rojê weke salvegera Rojnamegeriya Kurdî pîroz dikin.

Ji wê rojê virde ku hîmê Rojnamegeriya Kurdî bi destê pîroz ê Mîqdad Mîdhed Bedirxan hate danîn û Kurd bûn xwedî rojname, karwanê rojnamevaniya Kurdî serbarê gellek asteng û dijwariyên neyar û dijminên Kurdan, her berdewam û bêwestan xebata xwe domandiye. Mîqdad Mîdhed Bedirxan bi armanca gihandina dengê gelê kurd û hişyarkirina Kurdan Rojnameya KURDISTAN weşand. Bedirxan armanca rojnameya KURDISTAN'ê bi vî awayî destnîşan dike: "**Di dinyayê de çiqas Misilman hebin, di gund û bajarên hemûyan de dibistan û rojname hene, bûyerên ku li dinyayê diqewimin, di wan rojnameyan de têne nivîsîn, lê mixabin ku kurd ji rojnameyan bêpar in û nizanin di dinyayê de çi diqewime, gellek tiştan winda dikin**".

Bi pêşveçûna zanist û teknolojiyê, Rojnamegeriya Kurdî jî pêş ketiye û niha dehan televîzyon, radyo, rojname, kovar, ajans û malperên înternetî ên Kurdî weşanê dikin û xizmetê bi ziman, çand, civak û nasandina doza neteweyî a Kurd bi dinyaya derve dikin.

Ji bilî Başûrê Kurdistanê ku Hikûmeta Herêma Kurdistanê tê de desthilatdar e û




rojnamegeriya Kurdî bi azadî û serbestî weşanê dike, hêj li 3 parçeyên din ên Kurdistanê rojnamegeriya Kurdî tevî astengî û qedexeyên dijwar berbirû ye. Girtin, binçavkirin, lêdan, îşkence û îdam li Îranê, Turkiyê û Sûriyê bi xurtî ji aliyê wan sê dewletên desthilatdar dimeşe û kesên ku bi karê rojnamegeriyê re mijûl in, rastî dijwariyên jor tên.

Li Îranê ji ber ku 29 sal e rejîmeke dîktator û dijî kurd desthilatdariyê dike û maf û azadiyên berheq û demokratîk ên Kurdan tên înkar û binpêkirin, rojnamgeriya Kurdî bi xurtî û berfirehî di bin siyaseta qedexeyê de ye û li hundirê Kurdistana Îranê tu weşan û belavokek azad û serbixwe a Kurdî nahê dîtin. Lewra pirraniya rojname, kovar, televîzyon û radyo û malperên Kurdî ji aliyê partiyên siyasî ên Kurdî tên weşandin ku ew jî bi tevahî li Kurdistana Îranê qedexe ne. Di van çend salên borî de ku çend kovar û heftîname bi Kurdî-Farsî û di çarçoveya yasayên dewletê û di bin çavdêriya wan de dihatin weşandin, bi giştî hatine qedexekirin û xebatên wan hatine rawestandin.

Yekemîn rojnameya Kurdî li Kurdistana Îranê li serdemê şoreşa Simkoyê Şikak ve hate weşandin. Lê qonaxa pêşketin û geşandina berfireh û fermî a rojnamegeriya Kurdî li Kurdistana Rojhilat vedigere bo serdemê zêrîn û dîrokî ê Komara Kurdistanê ku di 11 meh ji desthilatdariya kin û kurt a Komara Kurdistanê de, dehan rojname, kovar û weşanên fermî ên cuda cuda hatin derxistin û Rojnama KURDISTAN organa Komîteya Navendî a PDK Îranê ku niha jî xebatên xwe ên rojnamegeriyê didomîne, dihat weşandin.

Di 110'mîn salvegera Rojnamevaniya Kurdî de, em serê rêz û hurmetê ji bo ruhê nemir û herdem zindî yê Mîqdad Mîdhed Bedirxan, pêşengê xebata rewşenbîrî û rojnamevanî a Kurd û hemû malbata Bedirxaniyan ditewînin.

Bi vê hencetê, em bi germ û gurrî vê rojê ji hemû rewşenbîr û rojnamegevanên Kurd pîroz dikin û di bibîrnîna 110'mîn salvegera Rojnamgeriya Kurdî de soz û peymanê nû dikin ku herdem li ser şop û rêbaza ku Mîqdad Mîdhed Bedirxan hîmê wê danî, ji bo xizmet bi ziman, çand û rojnamevaniya Kurdî bêwestan û berdewam bin û rêbaza wî ya bi rûmet bişopînin.

**Desteya Weşana Agirî**
**22.04.2008**

## 110'mîn Salvegera Rojnamevaniya Kurdî Li Seqizê Hate Pîrozkirin

Roja 24.04.2008'an, bi hinceta 110'mîn salvegera Rojnamevaniya Kurdî, ji aliyê civata çandî – wêjeyî a "Peyv"ê li bajarê Seqizê, şevbêrka helbestan hate lidarxistin.

Di vê şevbêrêkê de pitir ji 20 helbestvan û nivîskarên bajarê Seqiz, Bane, Bokan û her wiha hejmarek ji evîndarên helbest û wêjeya Kurdî beşdar bûn.

Helbestvanên weke Seîd Necarî(Aso), Kerîm Dafiî, Omer Farûqî, Emîn Gerdîgilanî û wd… helbestên xwe pêşkêş kirin.

Her wiha çend parçe muzîk û stran ji aliyê hunermendên beşdar ve pêkêşî beşdaran hatin kirin.





## Li Qahîreyê Salvegera Derketina Yekemîn Rojnameya Kurdî Hate Pîrozkirin



Dezgeha Bedirxan roja 22'yê Nîsana 2008'an, li Qahîreyê bi henceta 110'mîn salvegera Rojnemegeriya Kurdî, çalakiyeke kulturî saz kir.

Di çalakiya han a bibîranînê de, gellek wêjevan, rewşenbîr, dezgehên ragihandinê û nivîskarên Kurd û Ereb beşdar bûn û peyamên cur bi cur hatin pêşkêşkirin.